Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 31
15'ê Jun 2006
Buha: 150 Tûmen

# agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Cejna 2'yê Rêbendanê pîroz be

22.01.2006'an, 60'mîn salvegera damezrandina Komara Demokratîk ya Kurdistanê li bajarê Mehabadê di sala 1945'an de ye. Em vê cejna mezin ji hemû neteweya Kurd pîroz dikin.

**Desteya Nivîskar ya Agirî**



# SEBRA MIN BER BI DAWIYÊ DIÇE

## El Beradeî: "Sebra min ber bi dawiyê diçe"

Serokê Ajansa Vejena Etomê ya Navneteweyî, Dr. Mihemed El Beradeî, piştî girtina biryara Îranê li dor destpêkirina lêkolîn û xebatên Etomî got: "Hitbar kirin bi pêvajoya ceribandina rastiya xebatên Etomî yên Îranê di xeterê de ye." Wî her wiha got: "Sebra min ber bi dawiyê diçe, sebra civaka navneteweyî jî ber bi dawiyê diçe".

Serokê AVEN da xuya kirin: "Hemû hez dikin rejîmekê bibînin ku ji rêya wê raya giştî ya navneteweyî hitbarê bike û bipejirîne ku bernamên Etomî yên Îranê tenê armancên aştîxwazane hene û hêj hinek pirs hene ku em li dû wan digerin".

Dr. El Beradeî her wiha anî ziman ku raya giştî ya cîhanê tevî dewlemendkirina Uraniyûmê ji aliyê dewleta Îslamî ya Îranê nigeran e û bi çaveke nigeran mêzeryî vê dozê dike.



Bêrî Bihar:

## "Helbest naverok û wateya jiyanê ne"

Çîroknivîs, Helbestvan û nivîskara Kurd, Bêrî Bihar ji bo Agirî dipeyive:

**"Di dolaba ber serê cihê min de bi giştî pirtûkên helbestan hene. Weke zarokên bi lorikan dixew kevin, ez jî bi helbestan di xewre diçim"**

Di rûpela 7-8'an de



## Çand û xwe sansor kirin

Sansor tê wateya qut kirin, birîn, vebirîn, veşartin, pey hêştin, nuqum kirin yan jî bi awayekê ji nav birin û wenda kirinê.

Rojane em di xebat, bizav û axavtinên xwe de diyardeya han ango sansorê bi caran bikar tînin bêyî ku em hîs bi kêmî yan qusûriyekê bikin. Em li ser bersivên gelek pisiyaran di vê derheqê de baz didin bêyî ku em zanibin pirsiyarek raberî me dibe.

**Di rûpela 10'an de**



## Doza Etomî ya Îranê di rojeva siyasî ya cîhanê de

Armanca Komara Îslamî ji xebatên Etomî çêkirin û bidestveanîna çekên Etomî ye...



**(R. 3)**

## Demokrasî, biha û piratîka wê (Beşa 20)

Di vê beşê de beşdariya siyasî ya welatiyan di prosêsa demokrasiyê hatiye şirove kirin... **(R. 4)**



## Jin û çawaniya derbazbûna wan li kevneperestiyê

Jin di hemû civakên çîndar, mêr serdest, mesebî û nedemokratîk de di jêr îstismarê de ne **(R. 5)**



## ŞERÊ DERÛNÎ

Îro li ser rûyê dinê, belê nemaze jî li erdnîgriya Rojhilata Navîn şerekî tund û derûnî didome...



**(R. 9)**



## Peyama rêzdar Mistefa Hicrî bo birêz Mam Celal, Sekreterê Yekîtiya Nîştimanî ya Kurdistanê, seba hevgirtina her du îdare yên herêma Kurdistanê



**Birêz Mam Celal**
**Sekreterê YNK’ê**
**Silavekî germ**

Nûçeya hevgirtina her du îdare yên Hikûmeta Herêmê di rojên cejna Qurbanê de, xebereke xweş bû ku hemû Kurdeke welatparêz herdem li benda vê yekê bû.

Ji kesê re veşartî nine ku bi encam gihîştina vê piroseyê, encama cehd û têkoşîna cenabê te û birêz Mesûd Barzanî û dilsoziya her du Defterên Siyasî yên Yekîtiya Nîştimanî û Partiya Demokrat ya Kurdistanê bû. Em bi vê hincetê û her wisa bi egera cejna Qurbanê pîrozbahiyê ji te û gelê Kurd dikin.

Ev gava hêja û pir bihagiran me hêvîdar dike ku destpêkeke nû di têkiliyên navbera du hêzên sereke yên Kurdistanê û hemû hêzên demokratîxwaz yên Kurdistana Îraqê dê dest pê bike ku encama vê berfirehkirina herî zaf ya demokrasî û rihetiya rûniştiyên vî beşa Kurdistanê û cîgir kirineke bihêz ji hikûmeta Kurdistanê re pêk bîne.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Sekreterê Giştî**
**Mistefa Hicrî**
**08.01.2006-18.10.1384**



## Peyama rêzdar Mistefa Hicrî bo birêz Mesûd Barzanî, Serokê Herêma Kurdistanê, seba hevgirtina her du îdare yên herêma Kurdistanê



**Birêz cenabê Mesûd Barzanî, Serokê Herêma Kurdistanê**
**Tevî rêz û hûrmetan**

Nûçeya hevgirtina her du îdare yên Hikûmeta Herêmê yek ji destkevtên siyasî yên hêja û bihagirane Kurdistanê bû ku bê şik bi cehd û têkoşîna te yê rêzdar û cenabê Mam Celal û seh bi berpirsiyarî kirina Deftera Siyasî ya YNK’ê û Partiya Demokrat ya Kurdistanê bi destve hat.

Ev gave bersiveke hêja û bicî bi xwestek û daxwazên çend salî yên gelê Kurd bû, lewra jî bû sebeba keyfxwşî û hêviya hemû Kurdeke welatparêz û dostên neteweya Kurd.

Bi vê hincetê û her wisa bi egera cejna Qurbanê, em pîrozbahiyê ji te yê birêz û hemû gelê Kurd dikin.

Em hêvîdar in ku ev hevgirtina bibe rûpeleke nû ji birayetî û hevkariyê di navbera hêzên pêşkevtîxwaz yên Kurdistana Îraqê bi xasmanî PDK’ê û YNK’ê û encama wê bextewerî û ewlekarî ji bo gelê Kurd be.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Sekreterê Giştî**
**Mistefa Hicrî**
**08.01.2006-18.10.1384**

## Sê welatên Ewropayê daxwaza şopandina Dosya Etomî ya Îranê ji rêya Konseya Ewlekariyê kirin

Piştî ku welatê Îranê bê izin xebatên xwe yên Etomî dest pê kir, Wezîrên Derve yên 3 welatên Ewropayê Birîtanya, Fransa û Almanya roja pêncşemî 12.01.2006’an civîneke awarte li ser pirsa Etomî ya Îranê li darxistin û piştre dan xuya kirin ku gotûbêj û danûstandinên Etomî bi Îranê re bi dawî hat û ew dixwazin Konseya Ewlekariya RNY dozê bişopîne.

## Peyama Deftera Siyasî ya PDK Îranê bo Mekteba Siyasî ya Partiya Demokrat ya Kurdistanê bona hevgirtina her du îdareyên herêma Kurdistanê



Silav

Ragihandina nûçeya hevxistina mala Kurdan û hevgirtina her du îdare yên Herêma Kurdistanê ku di rastî de gaveke girîng ji bo çespandina destkevtên gelê Kurd û bihêz kirina doza Kurd di vê para Kurdistanê de, ji bo hemû xelkê Kurdistanê û dilsozên neteweya me cihê keyfxweşî û pêzaninê bû.

Bi vê hincetê, em pîrozbahiyê ji endamên rêzdar yên Serokatiya PDK'ê û hemû civatên xelkê Kurdistanê dikin û serkevtina pêtir ji tev aliyekê re bi giştî û nemaze ji hikûmeta hevgirtî ya Herêma Kurdistanê hêvî dikin.

**Tevî rêz û hurmetên me**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**08.01.2006- 18.10.1384**

## Peyama Deftera Siyasî ya PDK Îranê bo Mekteba Siyasî ya Yekîtiya Nîştiman ya Kurdistanê bona hevgirtina her du îdareyên herêma Kurdistanê

Silav

Ragihandina nûçeya hevxistina mala Kurdan û hevgirtina her du îdare yên Herêma Kurdistanê ku di rastî de gaveke girîng ji bo çespandina destkevtên gelê Kurd û bihêz kirina doza Kurd di vê para Kurdistanê de, ji bo hemû xelkê Kurdistanê û dilsozên neteweya me cihê keyfxweşî û pêzanînê bû.

Bi vê hincetê, em pîrozbahiyê ji endamên rêzdar yên Serokatiya YNK'ê û hemû civatên xelkê Kurdistanê dikin û serkevtina pêtir ji tev aliyekê re bi giştî û nemaze ji hikûmeta hevgirtî ya Herêma Kurdistanê hêvî dikin.

**Tevî rêz û hurmetên me**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**08.01.2006- 18.10.1384**

# Doza Etomî ya Îranê di rojeva siyasî ya cîhanê de

**Berezer**

Di dema 3 salên çûyî heta niha du pirsên balkêş bi awayekî xurt Îran xiste rojeva raya giştî ya cîhanê. Pirsa teknolojiya Etomî ya Îranê û herweha gotinên ne berpirsane û ne dîplomatîk yên Serok Komarê Terorîst, Mehmûd Ehmedînejad di vê mehê de bona hilgirtin û ji holê rakirina dewleta Îsraîlê li ser xarîteya cîhanê bûn.

Di vê nivîsarê de em tenê mijara doza Etomî ya Îranê û nemaze rojeva aloz ya vê dozê di dîplomasiya siyasî ya navneteweyî de didin ber bas û dahûrandinê.

Pirsa Teknolojiya Etomî a hikûmeta Îslamî ya Îranê di bihara sala 2003'an de û piştî kifş û aşkirabûna armanc û xebatên nepenî yên vê rejîma binajo ya Îslamî ji bo bidestxistina bombe û çekên Etomî û dewlemendkirina Uraniyûmê kete ber şik û gumana fermî a raya giştî ya cîhanê.

Di van 3 salên borî de dosya Etomî ya Îranê bû mijara gengeşe ya dîplomatîk di navbera hêzên mezin yên cîhanî. Komara Îslamî wekî rejîmek ku piştgiriyeke xurt ji terorîzma navneteweyî û hêzên terorîst yên herêmê dike û bi rejîmeke terorîstperwer hatiye naskirin, dijî aştiya Rojhilata Navîn, binpêkirina mafên mirovan û wd... di cîhanê de bi nav û deng e. Hemû welatên cîhanê van rastiyane dizanin û gelek caran jî dipejirînin. Lê mixabin demeke dirêj û heta hin ji wan niha jî ji ber peywendiyên xwe yên aborî û bazirganiyê bi Komara Îslamî re naxwazin ji armanc û meremên qirêj û hov yên vê rejîmê tê bigihîjin.

Amerîka her di destpêkê de ji armancên Komara Îslamî ya Îranê hesiya û daxwaza şandina dosya Etomî ya Îranê ji bo Konseya Ewlekariyê ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî kir. Piştî demekê welatên Yekîtiya Ewropayê pêşniyaz kirin ku bi rejîma Îslamiya Îranê re danûstandinê bidin dest pê kirin, belkî bikarin pirsgirêkê ji rêya gotûbêjê çareser bikin. Lê me dît ku biryar û helwestên Komara Îslamî ya Îranê di gotûbêjên bi YE'ê re tenê ji bo derbaskirina demê û nêzîk bûn ji armancên etomî yên wan bûn.

Rayedarên Îranê her gav îdea kirine û dikin ku ew teknolojî û bernameya etomî bi armancên ne leşkerî, aştîxwazane û ji bo bidestxistina şewat, elektirîkê û wd... bi kar tînin. Lê xebat û kiryarên rejîmê %100 dijî vê îdeayê selimandine. Di destpêkê de Rêxistina Ajansa Vejena Etomî ya Navneteweyî, Yekîtiya Ewropayê û piştre dewleta Rûsiyayê pêşniyazên cuda cuda xistin ber bala rayedarên Komara Îslamî da ku dest ji bidestxistina çekên Etomî û zaxkirina Uraniyûmê ber bide. Lê her wekî me got armancên wan berevajî îdeayên nerast yên wan bûn. Piraniya welatên cîhanê bi tundî ji bernameyên Etomî yên Îranê bi şik û guman in û bidestxistina çekên Etomî ji aliyê vê rejîmê bi xeterek mezin bo ser aştî û ewlekariya navneteweyî dizanin.

Niha Amerîka karî ye 5 welatên senetî yên mezine cîhanê razî bike ku hewl û xebatên dîplomatîk û gotûbêj tevî Komara Îslamî tu encameke erênî hêzgeha Etomî ya Natenzê dest pê kir. Berpirsiyarên rejîmê muhr û pilompên vê navenda girîng ya Etomî şikandin û bê baldan bi qanûn û mercên navneteweyî bi rêxistina Ajansa Vejena Etomî ya Navneteweyî re xebatên xwe yên dewlemendkirina Uraniyûmê dest pê kir. Qirar e ku rejîma Îslamî ya Îranê xebatên xwe di navendên Etomî yên din de jî bide dest pê kirin. Ev gava Komara Îslamî bû sebebê nîşandana nerazîbûneke xurt ya welatên cîhanê û raya giştî ya navneteweyî dijî Komara Îslamî ya Îranê. Ev kiryara Îranê dikare wekî govan û şahidê zindî û xuya yê binpêkirina biryarên navneteweyî ji bo welatên Ewropayê, Rûsiya, Çîn û wd.. re bihê zanîn û bi tevahî ji wan re biselime ku armancên vê rejîmê dijî ewlekarî û aramiya Navneteweyî ye û şandina dosya Etomî ya Îranê ji bo Konseya Ewlekariya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî bileztir û hevalbendiya cîhanê dijî hikûmeta Îsalmî ya Îranê hevgirtîtir bike.

Piştî ku welatê Îranê bê izin xebatên xwe yên Etomî dest pê kir, Wezîrên Derve yên 3 welatên




**Armanca Komara Îslamî ji xebatên Etomî çêkirin û bidestveanîna çekên Etomî ye**

nine. Dewletên Rûsiya, Çîn û Hindistanê di wan 3 salane de piştgîriyeke xurt ji bernama Etomî ya Komara Îslamî ya Îranê dikirin. Hindî ku dem derbas dibe ev welatên navhatî jî ji helwestên xwe di piştevanî ji Îranê paşde dikşînin.

Piştî ku Mehmûd Ehmedînejad di roja pêncşemî, 05.01.2006'an de ragihand ku di hefteyta pêşîn Îran dê xebatên xwe yên Etomî dest pê bike, roja 10'ê vê mehê hat ragihandin ku Îranê xebatên lêkolîn û dahûrandin li ser dewlemendkirina Uraniyûmê li

Ewropayê Birîtanya, Fransa û Almanya roja pêncşemî 12.01.2006’an civîneke awarte li ser pirsa Etomî ya Îranê li darxistin û piştre dan xuya kirin ku gotûbêj û danûstandinên Etomî bi Îranê re bi dawî hat û ew dixwazin Konseya Ewlekariya RNY dozê bişopîne.

Şandina Dosya Etomî ya Îranê bo Konseya Ewlekariyê ya RNY çiqas dê cî bi cî bibe, dimîne ser xebat û danûstandinên dîplomatîk yên raya giştî ya cîhanê... .

# Demokrasî, biha û piratîka wê

**(Beşa 20)**

**Kurmanc HAKKÎ**
**kurmanchakki@yahoo.com**

**Beşdariya siyasî**

Me li beşa berê, di destpêka basa beşdariya siyasî de got ku welatî dema dariştina destûra welatê xwe dikevin bin îrada exlaq û rewişta xwe ji bo parastina wîsta giştî. Beşdarî li piroseya amadekirina destûrê dibe sebebê wê ku welatî bi awayekî berfirehtir û dûrbîntir mesela mafê xwe li hev bidin. Encama beşdariyê xwe wek hevdîtina welatiyan bi awayekî berîntir li berê ye. Bi vî awayî beşdarî li piroseya amadekirina destûrê dibe sebebê pêşveçûn û geşe kirina civakê.

Di vê beşê da em dirêjiya basa pêşîn dom dikin:

Em dikaribin teoriya ”Rousseau” bi awayê jêrîn şirove bikin: Serbestî û otonomî ya mirov dema ku yasa rengvedana daxwaza giştî be, misoger dibe. Bê berçav girtina biryara piranî jî wîsta giştî, lê biryara li ser bingeha piranî metoda herî cihê baweriyê ye ji bo derbirîna daxwaza giştî. Şiroveya biryardan li ser bingeha piraniya ”Rousseau” bi awayê jêrîn tê kurt kirin:

1) Hebûna başiya (berjewendiya) havbeş
2) Welatî hemû carê bala xwe nadin ser vê yekê ku başiya havbeş çî ye
3) Dema welatî bixwazin berjewendiya havheş di rêya dengdanê diyarî bikin, deng û biryara civîna netewî (Parleman) dengdana cihê herî baweriyê ye.

”Rousseau” her wiha hêviyê dixwaze mirov li ser pirsa berjewendiya havbeş bi awayekî serbixwe bifikire. Bi raya wî her wisa dabeşkirina civakê li ser saziyên siyasî dikare gihîştin bi berjewendiyên havbeş lawaztir biket. Saziyên siyasî serxwebûna bîr û fikir kirinê ji mirov distînin û dibe hegera vê yekê ku mirov di şûna hizra serbixwe, di çarçoveya hizra sazî û partiyên siyasî de bifikire. Girifta sazî û rêxistinan bi hizra wî ewa ye ku berî ku ew rêxistinane di fikra berjewendiyên hevbeş bin, di hizra desthilat û berjewendiya saziyên xwe de ne.

Di gel ew argûmenta ”Rousseau” ku li serê qala wê hat kirin, ew li ser vê baweriyê bû, hetanî mirov zêdetir wekhev bifikirin, berjewendiya havbeş bi awayekî hêsantir tê diyarî kirin. Ji ber vê yekê ”Rousseau” daxwaz dike piraniya dengan ji bo biryardan li ser hin nirxên civakî yên girîng û hevgirtî



## Welatî li ser bingeha zanyariyên serbixwe ji bo diyarî kirina *başiya havbeş* biryarê didin

wek berjewendiya havbeş bê dan. Bi kurtî em dikarin bibêjin ku bi baweriya ”Rousseau”, beşdariya gelek mirovan bo diyarîkirina vêc û berjewendiyên havbeş li biryar yan hizra take kesek baştir û dewlementir e. Ji ber ku di dema biryara havbeş bi beşdariya piraniya mirovan, qazanc û berjewendiyên takekes ji nav diçin û biryar bi awayekî giştî xizmeta hemû welatiyan dike.

”Rousseau” nabêje ku bi dengdanê û bidestveanîna piraniya dengan, daxwaza havbeş hatibe cih. Mirov dikare hizra wî bi vî awayî jî şirove bike: Wîsta havbeş yan daxwaza yekgirtî xweziyek îdeal e ku mirov dikare di rewşeke îdeal da misoger bike. Rewşa îodeal jî di demekê de ye ku tê de têgihîştina exlaqî û serxwebûn û otonomiya takên mirovan bi awayekî wekhev hatibe parastin. Metodên demokrasî ji bo bidestve selimandina wîsta havbeş vê gavê metodên ne kemilkî ne.

Her wek di beşên berê jî qala wê hate kirin, heke bihê û altirnatîv zêdeyî duduyan (2) bin, vê gavê bidestveanîna piraniya reha[1] ji bo diyarîkirina wîsta giştî merca bingehîn nine. Di wê rewşê de pênase kirina biryara li ser bingeha dengê piranî karek ne hêsan e. Gelo em dikarin bibêjin ku di rewşeke wilo da hizra ”Rousseau” dikeve bin pirsyarê?

Bingeha hilbijartinê li dengdanên demokratîk de ew zanyarî ne yên ku dengderan ji bo diyarîkirina daxwaza havbeş bi destve anîne, ku bi hizra wan bi awayekî sebixwe bi dest anîne û bi berhevdana zanyariyên cur bi cur herî baş altirnatîva hildibijêrin.

Her çiqas dengderan kirîtîk û standardên wek hev hebin, ji berhevdana altirnatîvên hilbijartinê, welatî dikaribin li gor girîngiyê pirsên hatî ber dengdanê rêz bikin û li gor wê prefirênsa xwe hilbijêrin. Piştî ku pirs bi dengê piranî hat pesend kirin, dîtinên cuda û texmîna wê ku şaşî hatiye kirin, ji nav diçin û nirxa xwe ji dest didin. Em dikarin nimûneyeke wilo ser baseke taybet bi meseleyekê ku endamên rêberiya rêxistinekê dixwazibin biryarê li ser bidin. Biryara wan li gor wan zanyarî û belgane ye ku di destê wan kesane da ye û her kes ji endamên saziyê bi awayekî cuda ser vê mijarê hizir dikin û dikaribe çend kesek jî dijî vê biryarê rawestin. Lê dema dengdanê û bidestveanîna piraniya dengan ji bo pesend kirina wê biyarê dîtinên dijberan tu nirxek li encama giştî kêm nake û nabe rêgirê cî bi cî kirina biryarê.

Di biryarên kolektîv de, welatî li ser bingeha zanyariyên serbixwe ji bo diyarî kirina ***başiya havbeş*** biryarê didin. Bi gotineke din ji bo diyarî kirina başiya havbeş hewce bi bidestveanîna yekdengiyê nake. Welatî hewce nake li diyarî kirina başiya havbeş wek hev hizir bikin, lê divêt şirove û pênaseyên cur bi cur li ser başiya havbeş û çewaniya bidestveanîna wê bê pêşkêş kirin. Ev merca han rewşeke wilo pêş tîne ku welatî bikarin li gor biryara li ser dengê piranî berjewendî û başiya havbeş pênase bikin.

Ji bo me Kurdan girîng e ku bizanibin di rewşa civakeke pirereng û piralî ya Rojhilata Navîn de pênase kirina şêwaza diyarî kirina berjewendiyên havbeş bi sadeyiya teoriya serê ku qala welatê kirin nine. Welatên ku Kurdistan di ser wan hatiye dabeşkirin li gelek kêmaniyên etnîkî, netewî, ayînî, zimanî û siyasî û aborî pêk hatine ku piraliyektaybet dide bi şirovekirina cura berjewendiya havbeş. Xalek giring û balkêş ku di pênasekirina demokrasiyê ji aliyê netewên serdest tê berçav kirin, ji bîr kirina rastiya çend rehendî û pirnetewî bûna welatên wekî Îranê ye. Eva xalek lawaz û bêhêz ya hêzên demokrasîxwaz yên Îranê ye, yek ji astengên gihîştin bi alîkariya havbeş di navbera wana da ye.

Em di beşên tê de dê pitir li ser vê mijarê bisekinin.

[1]. مطلق

# Jin û çawaniya derbazbûna wan li kevneperestiyê

**Hemîd Muxtarî/ hemid83@yahoo.com**



Jin di hemû civakên çîndar, mêr serdest, mesebî û ne demokratîk de di jêr îstismarê de ne. Bi vê sedemê ku civakên han edet û kevneşopên xwe yê paremayî li ser jinan de sepandine, jin zêdetir li vê yekê ku seba rola xwe di malbatê de di bin zextê de ne, bi giştî rastî sitemeka civakî hatine ku pêşiya jiyan û fikra wan wekî mirov digire.

Bo mînak, bawerên wekî **mêr berpirsê parastina malbatê ne û jin berpirsên kar û barên nav malê, jin di warê eqlanî de ne kemilî ye, kesê ku fermana jiyana xwe bisipêre jinan, ser nakeve** yan **mêr li jinan pêştirin** û wd..., di derbarê jinan de dewsên nebaş li ser terzê fikra xelkên ku ne bi şarezayî ev bawer qebûl kirine, bi cih dihêle. Bi her hal hêşta jî bi awayekî berfireh ev kevne fikrane di nava xelkê de tên xuya kirin. Ev yek jî eyan dike ku kevneperest ji bo ku bikarin xelkê îstismar bikin, tim di xebatê de ne.

Li sedî 88 ji dayîkên Îranî li dema pêkhatina kesayetî ya cinsî ya keçan, keçên xwe dûr li serxwebûnê dikin û dielimînin û keç jî hêmnayetiyekî derewîn tevî tirsê dicerbînin. Kur tûşî xwe zor zanînê dibin û keç jî biçûktir li hindê xwe dibînin ku bikarin bîr û ramanên xwe der bibrin. Li gor rapirsiyekî rojnamevanî di Îranê de di nava 54 ji sedê ya keçan hez bi mêr bûnê dikin ku divêt ji bo rizgar bûn ji vê yekê xebat û perwerdeya berdewam bê kirin.

Eybên bicih mayî yên civaka kevin weke xwe kêm zanîn û berçavtengî ku bi zanayane yan ne zanayane di nava beşekî zor li jinan de tê xuya kirin, astenga serkevtina wan e. Lewra ye ku xebatekî berfireh û berdewam hewce ye. Divêt ku jina şorişvan bi terzekî rasterast li wan pirsgirêkan binihêre, şareza bibe, rê û terzan fêr bibe û erkê ji nav birina wan eyban bigre stû, û di destpêkê de jî divêt ku ji nû ve xwe çekirin di hebûna jinan de pêk were.

Divêt ku ew bi dilêrî û zîrekî xwe biguherin û berpirsyarî û qeyd û bendên exlaqî yên civaka kevin dûr bavêjin û şer bikin ji bo bi destgirtina çarenivîsa xwe û rizgar bûn ji îstismar, çewisandin û qeyd û bendên madî û menewî ku ji aliyê dewlet, eşîret û civaka mêr serdest pêk hatine. Her wiha divêt jiyanek hevbeş ava bikin ku mêr û jin bi rastî tê de şirîk û wekhev in.

Azadiya jinan ne tiştek e ku mêr ji wan re didin, belku bi xebata berdewam a wan di astên cur bi cur yên aborî, civakî û siyasî de bi destve tê. Azadiya jinan li rêya hejmara jinên karmend û karger li îdare û sazî yên dewletî, wezaretxana û hejmara jinên xwendevan nahê diyarî kirin, belku berhema beşdariya wan di astên cur bi cur yên berhemanîn, civakî û siyasî de ye.

Wezîfe ye ku jin bo rizgar bûnê ji deb û edetên kevnar di warên jêr de bên zane kirin:

1) Zanekirina jinan, haydan û nasyar kirina wan li ser pirsa azadî û mafê wan û hevkarî ji bo çêtir fêmkirina vê yekê.

2) Elimandina jinan û ji nav birina nexwendewariyê bi avakirina navendên xwendinê di herêmên ku hejmara jinên nexwende tê de zaf in.

3) Danîna zandorên fêrbûnê bi merema şirove kirina pirsên siyasî û civakî.

4) Guhartina rewşa jinan li rêya peywendiya wan tevî xebat dijî Îstismar û ne wekhevî ya zayendî, ji ber ku tu tevgerekî azadîxwaz nikare bê beşdariya jinan pêk were û tenê demekê tevgerên han ser dikevin ku bi sedan û milyonan jin tê de beşdar bin.

5) Xebat dijî bîr û bawerên nerast yên ku rolê jinan tenê di zewicîn û zarokbûnê de dizanin.

Eva dijberiya me tevî jinên zewicî û xwedî zarok nine, bûn û mezin kirina zarokan tiştekî xwezayî ye, belku xebata me dijî vê hindê ye ku ev yeka tenê rolê jinan di jiyanê de nehê hisêb kirin.

Xebata azadîxwazî ya jinan ne dijî mêran, e belkî dijberî û şer tevî wan bîr û bawerane ye ku jinan di çarçoveya malbatê de hepis dikin. Ji bo ku ev bîr û baweriyên nerast ku ji aliyê rejîmên kevneperest weke Komara Îslamî ya Îranê, Taleban û hin partî û rêxistinên tundrew ve tên piştevanî kirin, di mêjiyê mêr û jinan de bê ji nav birin, hewceye ku em ji nav birina rejîm û partiyên han bernameya kar û xebata xwe bigrin.

Divêt em bibêjin ku sedsala 21'an û guhertinên di nava cîhanê bi taybetî di Rojhilata Navîn de bi qazancê xelkê herêmê û nemaze jinan pêşve diçe, ji ber ku piştî hiloşîna Yekîtiya Soviyetistana berê û pêşveçûna sîstema navneteweyî ber bi ron bûn û yek alîbûnê, Amerîka lîstikvanê eslî, di xeyva dijberên dewrana şerê sar hêzekî zêdetir di qadên navneteweyî û rû bi rû bûnê de tevî astengên hemberî xwe peyda kir.

Bi taybetî piştî bûyera 11'ê Sibtambra 2001'an, hemû welatên pêşkevtî yên cîhanê tirsa terorîzma cîhanî di nav xwe de seh pê kirin û ew bûyer bû sebeb ku guhertinên bingehîn di sîstema navneteweyî ya cîhanê nemaze di Amerîkayê de pêk

bihên û Amerîka jî dest bi şerê leşkerî kir ji bo ku pêşiya dubare bûna vê tirsê bigre û bi ji nav birina rejîma serberedayî ya Taleban gavek mezin di pirosêsa demokrasiyê di Rojhelata Navîn de avêt ku piştî çend salan şer û xwînrejandinê di Efxanistanê de xelkê vê rûyê aştî, azadî û demokrasiyê dîtin. Hêminayetiyeke navincî, bingehên cihgirbûna demokrasiya civatî û beşdariya hemû gel û meseban di hêz û îdare kirina vî welatî de pêk anîn.

Ji aliyekî din ve yek ji prosesên din yên serkevtî ên demokrasiyê di Rojhilata Navîn de, ji navçûna rejîma faşîst û dêktator a Bees li Îraqê bû. Hiloşîna vê rejîmê bû sebebê azadiya xelkê Îraqê bi giştî û pesend kirina qanûna (destûrî)bingehîn ji aliyê xelkê ve ku tê de mafekî wekhev bi hemû xelk û meseban hatiye dayîn. Bo nimûne, di madeya yekê ya destûra Îraqê de hatiye:

"Îraq welateke demokratîk, yekgirtî û federatîv e û bingeha vê Komara demokratîk a parlemanî ye ku bi awayekî fermî navê vê Komara Federatîv a Îraqê ye ".

Di benda yekê ji madeya 8'an ya vê destûrê de jî hatiye:

"Li hemberî qanûnê de tu cudahiyek seba zayend, nejad, reng, ziman, ayîn û meseb, bingeh û rewşa civakî di nava welatiyan de tu nine''.

Madeya 10'ê jî li hemû waran de wekheviya jin û mêran dixe ber bas.

Îro li Îranê de pirsa cîhanî ya mafê mirovan, cudahiyên cinsî, mafê kêmanî yên netewî, mesebî û çekên etomî yê bûye sedema givaşa Rêxistina Neteweyên Yekbuyî li ser vî welatî.

Li gor vê yekê îro ji bo beşdariya jinan di pirsên civakî de, derfetên baştir hatine holê û bergehên nû ketine pêşiya wan. Lê niha qasê giringîdana jinan bi van derfetan cihê pirsê ye ka ev dê çiqas giringiyê bidenê de?

Bi raya min divêt:

1) Ew(jin)bibin xwediyê zanebûna taybeta bi xwe

2) Şarezayî û pisporiyê fêr bibin

Zanebûna siyasî rolê micid dilîze û encama Vê peyda bûna rêya herî rast e ji bo azadiyê. Divêt jin xwe organîze bikin û di nava tevgera rizgarîxwaz de xebatê bimeşînin û organîze kirina wan dibe alav û amûra tevgerê.

Bê xwe zane kirinê jin nikarin di esmanê bilid yê jiyanê de bifirin û teslîmê jiyana dayîkiyê û hêminayetî di herêma biçûk ya malbatê de bibin. Jinan xwe bi serkevtinên niha bendewar kirine, ji pêşkevtinê xwe diparêzin û dema xwe ya bihagiran bi pûçî derbas dikin.

Ew bi rastî xwe ji nav dibin û hemû derfetên baş ku serdamê me yê îro ji wan re pêk anîne, ji dest didin û demên giranbiha yên jiyana xwe ji dest didin ku ji wan re jî qet navegere.

**Jêder:**

1)Kovara mehane ya civakî, çandî û hunerî ya Îranduxt

2)Pêşnivîsa destûra nû ya Îraqê

# Jinek bû Şaredara herî baş ya cîhanê

Di demekê de ku Dora Bakoyanî di Janviya sala 2003’an de wekî Şaredara Atenê ya çil û heştemîn hate hilbijartin, tenê di dema 2 salan de bi pêk anîna guhartinan li Paytexta Yûnanê, wekî Şaredara herî baş di sala 2005’an de hate diyarî kirin.

Ew yekemîn jin e ku di dîroka sê hezar salî ya bajarê Atenê, rêvebiriya paytexta herî qedîm û kevn ya Ewropayê li stû digre. Her wiha di hilbijartina sala 2002’an de, Bakoyanî karî 61 ji sedê ya dengan bi destve bîne ku hejmareke bêwêne bû.

Bakoyanî di destpêka ciwaniya xwe de berpirsiyariyên cur bi cur di çend wezaretxaneyên Yûnanê li stû girtin û çend geran nûnerê Parlemanê bû û piştî diyarîkirina bavê wê wekî Serok Wezîr, Bakoyanî bû cîgir û şûnkarê yek ji wezaretxaneyên Yûnanê û piştre jî bû Wezîra Çandê.

***Jêder: Malpera Terîbûna Jinên Femînîst yên Îranê***

# Komara Îslamî dixwaze keça 18 salî, Nazenînê îdam bike




Li gorî rapora Rojnameya "Etemad", çapa Tehranê, keçeke 18 salî bi navê Nazenîn ji aliyê tayê 71 yê Dadgeha Tehranê bi qesas (kuştina bedel) hatiye gunehbar kirin. Nazenîn bihara derbasbûyî tevî çend hevalên xwe û herwiha dezgîranê xwe diçe bo seyranê li derdora bajarê Kerecê. Li wir ew dikeve ber êrîşa 3 mêran.

Li gorî agahiyên rapora Rojnameya Etemad, wan sê kesan xwestibûn ku destdirêjiyê bi namûsê Naznînê bikin û wê jî di berevanî kirin ji xwe bi kêrê yek ji wan kesan kuştibû. Lewra li gorî qanûna Îslamî ya Îranê bi cezaya îdamê hatiye mehkûm kirin.

Hêjayî gotinê ye ku Nazenîn de dema girtinê de 17 salî bûye.

***Jêder: Malpera Kurdî ya Birûske***

## Belavkirina berfireh ya madeyên bêhişker li bajarên Kurdistanê ji aliyê rejîma Komara Îslamî

Rejîma hov û Kurdkuj ya Komara Îslamî ya Îranê li hemû bajarên Kurdistanê bi awayekî berfireh madeyên bêhişker (sirker) di nava xelkê bi giştî û nemaze di nav Ciwanan de belav dike û wekî siyaseteke Kurdkujane û asîmîlekirinê bi kar tîne.

Hin kirêgirtiyên ser bi rejîmê li bajarên Kurdistanê bi pişgîriya wan û bê tu astengiyek van xebatên dijî gelî dimeşînin. Hêza Îtilaat (Sîxor û Ajan)a Komara Îslamî bi vî karê xwe û her wiha mifah wergirtin ji wan jinên ku tûşî nesaxiya Îdzê bûne, hem civatên xelkê Kurdistanê mutad dike û hem wan tûşî nexweşiya kuştinê ya Îdzê bike.

Bi salan e ku rejîma Komara Îslamî vê siyasetê û gelek rêbazên din yên tune kirinê dijî neteweya Kurd dimeşîne.

**Bêrî Bihar:**

# MIN BI RÊYA HELBESTÊ ZIMANÊ XWE NAS KIRIYE

***Di nava qada nivîskarî û rewşenbîrî ya Kurdan de, jin pir kêm beşdar û çeleng in. Min xatûna Bêrî Bihar ji rêya nivîsar û helbsetên wê yên rengîn û dewlemend nas kir. Ew ji bilî nivîskarî, helbestan dihûne û kurteçîrokan jî bi Kurdî dinivîsîne. Li gundekî Batmanê (Îluh) ya Kurdistana Bakûr ji dayîk bûye û piştre mezin bûye. Kalê wê Şêx û bavê wê jî Mela bûye. Hebûn û nasnameya Kurdî wekî ya olî ji bo bavê wê girîng bûye. Bi gotina Bêriyê bavê wê azan (bang) dixwend û berhemên Cegerxwîn jî dixwend. Heya dawiya lîsê helbest bi zimanê Turkî nivîsandine. Ji ber ku bikaranîna zimanê Kurdî di hemû qadên perwerdê û... de qedexe bûye û niha jî herwisa ye. Ji sala 1991'an li Zanîngeha Gazî li Enqereyê tevî berhemên helbestvanê navdar yê Kurd seydayê Cegerxwîn nasyar dibe. Gelek nivîsar û helbestên Bêrî Biharê di mehnameyên Kurdî de weşiyane. Di sala 1995'an de li Zanîngeha Gazî ya Enqereyê, beşa Mamostatyê kuta kiriye. Di navbera welatê Holandayê û Kurdistanê dijî.***

**Hevpeyvîn: Azad Kurdî**



**Dixwazim di destpêkê de pîrozbahiya derketina Dîwana te ya nû (Buwariya Hestên Lerizî) a Helbestan bikim. Pênaseya te li ser vê dîwana nû çi ye?**

B.B: Zor sipas. Ev dîwan romana hestên min ya helbestkî ye. Min romanek ji helbestan nivîsî ye. Awaz, deng û rengên wan di destê xwendevanan de geştir bûye. Heke nivîs nebûna, dê ew di binê balîvê min de stûxwar û sêwî bimana.

**Bi giştî pênaseya te ji Helbestê çi ye?**

B.B: Ji bo min helbest, reqsa hest û ramanên min e di mêjiyê min de. Ew reqsa peyv û hevokan carînan geş dibe, gur dibe, bilind dibe û helbestek jê çêdibe. Ez dibêjim mêjiyê min helbestan diwelide. Her wiha helbesta ku tê nivîsandin, dibe rîtma vê reqsê. Armanca min ya herî mezin ew e ku bi rêya helbestê vê govend û reqsê fereh û mezin bikim. Helbestan ji bo min rêya fêmkirina hest ji hestan, şirîktiya raman ji ramana ye. Helbest, jiyan bixwe ye. Tiştê ku helbestan xwedî dikin, bûyerên rojane ne, naverok û wateya jiyanê ne. şer e, xebat e, jin e, zarok e, xweza ye, xwarin û vexwarin e, helbest evîn e, dil û dilvîn e.

**Çawa bû ku te dest bi karê Helbestvaniyê kir?**

B.B: Li Dibistana Mecanî û dozde salî bûm. Ji bo pêşbirkeke helbestan, min jî helbestek bi zimanê Turkî, bi navê "Yarin (Sibê)" nivîsandibû. Ji xwe zimanekî din yê dibistanê tune bû. Gelek kurt bû, ji bîr nakim:

*Gelecek diyorsunuz bana*
*Hûn ji min re dibêjin Pêşeroj,*
*Gelecegimizsin diyorsunuz,*
*Tu pêşeroja me yî,*
*Herşey senin için diyorsunuz bana,*
*Heman tişt ji bo te ye,*
*Herşeyimiz senin için,*
*Heman hebûna me yê te ye,*
*Yarinimizsin diyorsunuz bana*
*Tu dahatûya me yî,*
*Neden eziyorsunuz beni, karlara basar gibi,*
*Ji bo çi hûn pêlî min dikin*
*Yarinsin diyorsunuz bana,*
*Di perçiqim weke berfê*
*Yarinsam!*
*Di binê rêçên we de*
*Neden vuruyorsunuz bana?*
*Pêşeroj im ez?*

*Çima hûn li min dixin?*

Ez bi vê helbestê bûm xwedî xelata yekemîn. Gelek tiştên piçûk weke diyarî min girtibû û di nava wan de defterek jî hebû. Gelek xweşik bû û min demeke dirêj tu tiştek tê de nenivîsand. Heya ku ez hêwirîm û min hêdî hêdî peyvên Kurdî û dûv re helbest bi zimanê Kurdî tê de nivîsand. Gelek helbestên min yên bi zimanê Turkî jî hene. Min ew ne wergerande Kurdî, ji ber ku ew hestên min yên Turkî bûn. Ji rihê Kurdewariyê ve lawaz bûn.

Nemir Cegerxwîn sedema min ya nivîsa bi zimanê Kurdî ye. Wî ji zaroktiya min ve bandorek mezin da bû min. Lê tenê weke dengê bavê min di guhên min de digeriya. Heya ku ez bi berhemên wî fêrî xwendin û nivîsa zimanê xwe bûm. Heke ku xweşiyek di Kurdîtî ya min de hebe, ew keda nemir Cegerxwîn e.

**Bêrî, gelo tu wek jineke Kurd dikarî bibêjî ku jinên Kurd jî xwediyê helbestê ne?**

B.B: Ez weke jinekê bi kêmasiya nivîskarên jin xemgîn dibim. Divêt ku jin nivîsandina xwezahiya xwe bi destê xwe bikin. Mixabin her mêr (!) jinê ji jinê re dinivîse. Em hîn jî fedî dikin ku hinek bi fikr û ramanên me bihisin. Ji bo ku mirov bibe xwediyê tiştekê, divêt ku mirov pêşî lê xwedî derkeve.

**Bêrî Bihar:**

# "Ji bo min helbest, reqsa hest û ramanên min e di mêjiyê min de"

**Tu rewşa Helbesta Kurdî îro çawa dibînî?**

B.B: Rewşa wêje û her wuha helbesta Kurdî li Başûr, Rojava û Rojhilat di çi merhelê de ye, baş nizanim. Bi baweriya min li Bakur, helbesta Kurdî, her wiha wêje ya Kurdî careke din qeşema xwe şikandiye û ber bi bihara duyemîn ve dimeşe. Îro gelek kes bi Kurdî dinivîsin. Dema ku berhemên Kurdî li pirtûkxaneyan dibînim, gelek kêfxweş dibim. Hêviya min ya pêşketina zimanê Kurdî xurttir dike. Weke ku tê dîtin di salên dawî de gelek pirtûk yên kurtçîrokan weşiyan. Ev nayê wê watê ku çîrok di wêjeya Kurdî de pêşketîtir in. Neweşana berhemên Kurdî bi tevahî qelsiyek e weşanxana ye. Ew di vê baweriyê de ne ku helbest nayên firotan û kesek naxwîne. Weşana pirtûkên helbestên Kurdî ji çapxanan re bûye rîsk û ew naxwazin ku pirtûkên helbestên Kurdî çap bikin. Di Turkî de pirsgirêk tune ye, lê Kurdî naxwazin. Di serî de çapxanên xwediyê wana Kurd, naxwazin. An jî gelek pere ji nivîskaran dixwazin. Ji xwe ev êbret e, şerm û areqa giran e li hember nivîskar. Çapxaneyek ku pirtûkên Kurdî çap bike jî ev car pirsgirêka belavkirinê dertê holê. Nivîskar mecbûrî bi karê belavkirinê ve jî mijûl dibe. Sîstemeke wisan, bi zanistî û rûniştî tune ye. Sedem ev e ku berhemên Kurdî yên ku çap dibin ji çewtiyan nafilitin. Herdem çewtiyên rastnivîsê di rojevê de ye. Curahiya devokan jî gelek çewtiyan dixe ziman. Ev jî aliyê helbesta Kurdî ya xemgîn û şikestî ne. Aliyê din jî kêmasiya xwendina Kurdî ye. Dema ku zimanê me bi tevahî qedexe bû, berhemên Kurdî çêtir dihatine xwendin û bi rûmettir bûn. Îro romaneka rêzdar Mehmed Uzun werdigere zimanê Turkî, ji aliyê xwendevanên Kurdî ve bêtir tê xwendin. Ev jî aliyê birîndariya xedar a wêjeya Kurdî ye. Min bi rêya helbestê zimanê xwe nas kiriye û bûme xwedî. Heke ku Helbest wisa bê paşxistin, vêca mirov wê bi çi şiklî ji zimanê xwe hez bike, nizanim. Helbest ne yên ku carekê bên xwendin û li alîkî bisekinin. Ez helbestekê deh caran dixwînim. Weke stiraneke melodî ya xweş ku kengê bîrê bikî, lê guhdarî bikî. Di dolaba ber serê cihê min de bi giştî pirtûkên helbestan hene. Weke zarokên bi lorikan dixew kevin, ez jî bi helbestan di xewre diçim.



**Tu ji xwe re kîjan helbestvan/an dikî bingeh?**

B.B: Dikarim bibêjim ku heya niha bandora tu kesekê weke Cegerxwîn li ser min çê nebûye. Ew sedema naskirin û destpêkirina min bi zimanê Kurdî re ye. Helbesta Osman Sebrî û Tîrêj jî gelek xweş e. Ji pirtûkên Karl May hez dikim. Ji helbestvanên cîhanê, Toon Tellegen, Hans Andreus (hollandî), Konstantinos Kavafîs, Arthur Rimbaud, Charles Baudelaire, T.S. Eliot û hê ji zaroktiya xwe ve Pablo Neruda nas dikim. Mirov dikare hêj vê rêzê dirêj bike. Kêfa min gelek ji ziman û mijarên Baudelaire û Rimbaud û ji Toon Tellegen re tê. Zimanekî zelal û rojane. Lê xweziya min bi wê Kurdiya Cegerxwîn ya xweş û dewlemend tê. Ji ber ku ez zêdetir helbest û berhemên derheqê rêzimana Kurdî de dişopînin. Pirtûkên helbestên Kurdî yên kî bin jî ez bi kêfxweşî wana dixwînim. Ez ji hest û ramanên mirovan hez dikim. Ji dilovanî û berî her tiştî ji zimanê xwe hez dikim.

**Helbest dikare çi peyamekê bide xwendevan?**

B.B: Piştî xwendina helbest an jî nivîsekê ku çend raman, an jî çend peyam di hişê mirov de nemînin, zêde tu taybetmendiyeke nivîsê ji xwendevan re namîne. Bes ev rewş ji her xwendevanekê re ne weke hev e. Ez hewl nadim ku xwendevan bixwaze yan nexwaze peyamekê ji helbestên min bigire. Tiştê ji min re girîng ew e ku xwendevan ji hestên min fêm bike û wana tevî hest û pejnên xwe bike. Her wiha bibîne ku bi rastî jî em çiqas dişibine hev û çiqas hest û pejnnêzîkê hev du ne. Dixwazim ku pirekê ji helbestan di nava xwe û xwendevanan de ava bikim. Bi saya vê pirê emê herdem naskiriyê hev bin.

**Her wekî tu dizanî, li Kurdistan jina Kurd bi awayê hewce ne azad e, raya te li ser azadiya Jinê çiye?**

B.B: Li ser azadiya jinê dikarim gelek tişt bibêjim. Lewra Pirtûkxaneyek hebe têrî nake. Azadiya jinê dîsa di destê jinê da ye. Jina Kurd dest bi lîstina rola xwe ya esîl kiriye, lê ne têr e. Divêt ku ew kirasê jinatiyê ku li bejna wê hatiye pîvan û lê teng tê, ji xwe bike. Ji ber ku ew ne herdem bîreke bin reş ya jiyanê ne ku heman qirêjî pê de diherikin. Ew xwediyên jiyanê ne. Jin ne mal, xîret û namûsa kesî ye, ew xwediyê xwebixwe, yê beden, hiş û ramanê xwe ye. Divêt ku ew pê bizanibin ku bi rastî jî çiqas biqawetin. Ango heya kengê wê mêr jina ji jinan re binivîsin? Gelo ew dikarin dûcanî, dayîktî an jî welidaniya bi canekî hizir bikin? Ew dikarin pesnê xizmeta xwe û malbatê bidin an jî bixwe bikin? Ew çiqas dikarin çîroka me ji hest û ramanên, ji pejnên me naziktir bîne ziman? Mêrê herî pêşketî jî ji xizmetê hez dike. Ji ber ku ev bi mêrantiya wan ve hatiye hevîrkirin. Zextên zagon, kevnezagon û sîstemên dagîrkeran jî bi awayekî xurt jinê binpê dike. Jin divêt, êdî xwedî li xwe û hestên xwe, mêjiyê xwe derê. Xwedî yê jiyana xwe be.

**Plan û projeyên te di pêşerojê de çi ne?**

B.B: Çavdêriyên Rêwî û çend çîrok di destê min de ne. Ez ji xwe bi çavê helbestvaniyê li xwe nanihêrim. Ez çîrokan dinivîsim. Helbest weke kulîlkan ji nava çîrokê der tên. Dixwazim vê carê berhemeke min a çîrokan hebe. Hewl didim ku çend berheman ( Helbest, çîrokên zarokan) Ji zimanê Hollandî biwergerînim zimanê Kurdî. Dîsa hewl didim ku helbestên xwe biwergerim zimanê Hollandî. Karekî zor û demdirêj e. Gelek dem û zanistî dixwaze.

# ŞERÊ DERÛNÎ

**ADAR JIYAN**
adarjiyan@mynet.com

Îro li ser rûyê dinê, belê nemaze jî li erdnîgriya Rojhilata Navîn şerekî tund û derûnî didome. Mirov dikare vî şerî wekî şerê cîhanê yê sêyemîn bin nav bike.

Şerê heyî, ji azîne û rêbarên leşkerî vêdetir bi şewazeke aqilane û hovane yê ku dil û mêjiyê mirovahiyê dîl digere, didome. Yanê mirovahî bi şerekî ku qeyran, sehm û aloziyê bi xwe re tîne, rû bi rû maye.

Rojhilata Navîn, erdnîgeriyeke wisa ye ku her gav bi her awayî bûye mak û qada arîşe û gelemşeyên civakî, komalî û herêmî. Bi rastî tenê ne herêmî jî; her wiha jêdera hemû şer û pevçûnên navxweyî û navneteweyî jî li ser vê erdnîgariyê dest pê dikin. Yanê Rojhilata Navîn ji dîroka qedîm û vir ve, pirsgirêkên bêçareserî bêhnê li şênî û xwecihîn vê erdnîgariyê diçikîne û emanê nade ku tu civakên vê rûzemînê tu xêrê ji jiyana xwe bibînin.

Pergalên ku bi hinceta çareseriya van pirsgirêkan tekilî vê erdnîgariyê dibin, ew bi xwe dibin mak û kana pirsgirêkan. Ne ew dikarin (dixwazin) pirsgirêkên vê herêmê çareser bikin û ne jî dihêlin tu hêzên xêrdoş û aştîxwaz têkilî van pirsgirêkan bibin.

Pirsgirêkên vê herêmê ne ji ber ol û baweriya civakên Rojhilata Navîn in û ne jî tenê ji ber nijad û neteweyên wê ne. Ji aliyê din ve, him ji ber ol û baweriyên civakî û hem jî ji ber tekoşînen neteweyî ne. Ji bo wê, divê pirsgirêk bi dorhêlî were peytendin û veçirandin.

Pirsgirêka Rojhilata Navîn tevê mirovahiyê eleqeder dike. Lewre ol û baweriyên xwedayî jî li ser vê erdnîgariyê îflehî xwe nebûne û cehd û hewildanên van olan jî têra çareseriya van pirsgirêkên dîrokî nekirine. Pirsgirêkên herêmê xwe disperên dem û domanên kevnar û serdemên neolîtîk… Pirsgirêkê ku li ser vê erdnîgariyê pêk hatine/tên, ew pirsgirêkên ku bi qasî ku di tu netewe-dewlet an jî di tu ol û baweriyên yekxwedayî de hilneyên, kûr, berfereh û mezin in.



Pirsgirêk tenê ne pirsgirêkekî êlî, hawişî, malbatî an ji neteweyî ye jî. Her pirsgirêk di hundirê xwe de bi qasî pirsgirêkeke navneteweyî û gerdûnî têkel û giran e. Civaka Rojhilata Navîn, civakeke ripinî ya kevnar, qedîm a hemû civakan e. Hêz û qudreta wê jî ji vê wesf û derameta wê tê. Şaristaniya ji bo veçirandin û dahûrandinên pirsgirêkên Rojhilata Navîn, hewcetî, pêşî bi bastûr û çawaniya hişmendiya civakên ku di koşa wê da dijîn, heye. Sê hişmendiyên yekxudayî li ser vê herêmê kok dane û belav bûne.

Desthilatdariyên ku li Rojhilata Navîn pêkhatine jî qet naşibin gelek desthilatderyên dinê yên din. Têgih û kirûyên şerên herêm û deverên din jî ew qasî ne durî rexistinên hişmendî yên vê erdnîgariyê ne. Dîsa jî li ser vê erdnîgariyê, di serî de rewşa aborî û şêwaza hilberiyê roleke pir girîng û diyarker dileyîze.

Di mercên îroyîn de tu kes nema dikare pirsgirêkên vê herêmê di ser guhê xwe re bavêje, an ji qeyran û aloziyên wê mandele bike. Tiştê herî balkêş jî ev e ku ne xwediyê vê erdnîgariyê û neştecihên wê bi awayekî ji dil pirsgirêkên wê hildidin dest û ne jî yên (hêzên) ku bi angaşta çareserkirina van pirsgirêkan tevdigerin ji bo vê yekê hewl û cehd didin.

Di Rojhilata Navîn dê hişmendiya ku bi hezaran sal pêkhatiye û kemiliye, xwe dispêre serdemên mîtolojîk. Afrînerên mîtolojiyê yên herî qedîm û navdar rehîb û wêjenasên sumeriyan in.

Her ku diçe, xwezaya rengîn tevlî heyînê û heyberên xwe. Ber û bereketa xwe tevlî ji hêla heyînê herî erjang û xeternak (mirov) ve tê çilmisandin, kurnisandin û fetisandin.

Helbest

## Dîlê evînê

**Ziyad Neqîb Berwarî**

Digel elindê
Pirçê xwe yê
Xelek..xelek
Digel tîrojkên
Rojeka nwî
Li dor dilê min
Di aland û..
Dav..dav
Kirin rav û
Pê girêdam!
Kirme dîlek..!
Belengazek
Min kir hewar
Cana nazik
Ez ne dîlim
Di bendîxana zeriya da
Tim vemînim
Evan dava
Rewşa çava
Jidor dilê min
Tu dûr bêxe
O bi hêle
Yê ser xobim
Ez rêvingim
Karwanî me
Qonaxa min
Ya dûr û dirêje,
Wêhe..!
Memûyê jar
Yê diket hewar
Ho birawo..
Li bextê te me
Saloxdanên
Zîna xemgîn
Ji min ra sehke û
Bû min bîne
Tu xudêke
Ho birawo..
Zwîbe lezke
Davên xwe ji dorên min
Zwî helîne û rake
Memê reben
Yê xerîbe û..
Limin bijivane
Giyanê wî
Di zîndanê da
Rizî û..
Pişev û roja
Lê nalîne
Torîna min!
Yewmanê bi de min
Bersiva wî
Niyaza wî
Dê bû bem û
Dê lite zivrim
Hîngê şirîn
Tev kezyên te
Dê lidor xwe alînim
Helmirîsim û ramîsim..
Dê bim dildarê,
Dilê te..!
Dê bim dîlê..
Evîna te..
1985

**Ji Dîwana duyem Werzên Evîna Min hatiye wergirtin.**

# Çand û xwe sansor kirin

**Emîr Şuaîvend**

Sansor tê wateya qut kirin, birîn, vebirîn, veşartin, pey hêştin, nuqum kirin yan jî bi awayekê ji nav birin û wenda kirinê.

Rojane em di xebat, bizav û axavtinên xwe de diyardeya han ango sansorê bi caran bikar tînin bêyî ku em hîs bi kêmî yan qusûriyekê bikin. Em li ser bersivên gelek pisiyaran di vê derheqê de baz didin bêyî ku em zanibin pirsiyarek raberî me dibe.

Sansor ji dayîkbûyê çandekî bendkirî bi Îdeolojiyên pîroz e, Îdeolojî dema tevlî çanda civakekê dibe, sansorê hê bihêztir dike, lê hêz û rexneya îdeolojiya pîroz bi qasekê ye ku sansorê li hember çavan namo dixe. Di rewşekî han de sansor ji aliyê mirovan ve ne qusûrî, belkî ev her cihê pirsiyarê jî nine!!!

Îdeolojiya ku sansorê bar tîne û vê tevlî çandê dike, dikare siyasî, kevneşopî yan jî olî be, ev dikare di nava çandekî de bihê mehadin yan jî bi amadeyî bihê sepandin. Sansora ku ji hêla îdeolojiya sepandî dikeve ser çandê bi hêsanî cihê rexne û pirsiyarê li ba mirovan vedike.

Lê ev bi qasekê bihêz û bixof e ku derfetê nade mirov bi hêsanî vê çandê rexne bikin, weke îdeolojiya olî û siyasî. Lê sansora ku ji hêla kevneşopê ve di nava çandê de tê mehandin ji ber ku ev berhemê edet û tîtalên taybet û cura têfikirîna civakê ye ji xêncî ku tu rexne û pirsiyarekê ji hêla civaka xwe ve zeq nake, bigre ev bi baldarî jî tê parastin. Ev cura sansora han weke volkanekê ji nava mêjiyê civakê ve serî hil dide û bi hêsanî jî nahê ramalîn.

Di civakên weke civaka me Kurdan ji ber ku kevneşop weke tiştekî pîroz tê nasîn, ev yek rê li ber pirsa **Gelo em çima xwe sansor dikin?** tengas dike. Ev yek jî ji ber vê çandê ye ku kevneşop wekî mîratê bav û kalan digehe destê me û li vir e ku em dîsan gelek pirsan li pey xwe dihêlin û xwe erkdar dizanin ku ev emaneta pîroz weke ku çawa gihîştî destê me raberî nifşa nûgihîştî bikin. Di civakên han de piranî ji ber ku perwerde cerbîn e ne zanistî, dike ku çand parve bimîne û kevneşop jî rehên xwe hê qahîmtir bike.

Gelo em çima xwe sansor dikin?

Ji ber ku civak ji texên cur bi cur pêk tê, hin kes ji bo bersiva vê pirsê faktên olî, Ayînî û hin kes jî faktên kevneşopî zeq dikin. Lê texek jî heye ku di hember vê pirsê da şikve dimînin, ji ber ku ev pirse ji bo wan nû û nenas dixuye.

**Sansora Olî:**

Ol zêdeyî her tiştî sansorê bihêz dike, ji ber ku ol bi xwe îdeolojiyek e û îdeolojî jî bingehekî neguher e.

Sansora olî ji xêncî bandorên teorîk li ser mêjî û ramanên



mirovan bandorên piratîkî jî dihêle û vê çandê radixe ber çavan. Bo mînak di ola Îslamê de ku ji aliyê piraniya Kurdan ve tê peyrew kirin, biryar e ku jina misilman ji xêncî cilên normal, gereke por, zend, bask û lingên xwe jî li hember zilaman de dapoşîne. Ev yek sansorakî herî berçav e. Lê çima tenê jin gereke vê biryarê bigehîne piratîkê?? Ev pirs tim bê bersiv e yan jî ger bersiv bihê dayîn bi aqlaniyetê re dijber e.

Heya ku cîhan biçûktir dibe, ol û îdeolojî jî lawaztir dibin. Di cîhana îro de heke olek nexwaze wenda be, gereke hin reforman di xwe de pêk bîne û ji safiya mentiqê re derbaz bibe. Bo mînak ola Mesîhiyetê ji bo ku barê sansorê li ser xelkê oldar sivik bike û bi cîhana îro re sazgar be, guhertinên bingehîn di xwe de pêk tîne û ev yek jî pir bi germî ji hêla xelkê ve tê pêşwazî kirin.

**Sansora di axavtinê de:**




Axavtin û terzên bikaranîna peyvan hunerek e ku li ba her kesekê tune, axavtin remza ji hev fêmkirin û bi hevra jiyanê ye. Sansora nebicî di axavtinê de dişibe darekê ku tim bê bar û pel be. Rojane em di axavtinên gelek kesan de peyvên weke Haşa, Perde, Dûrbe, Tobe, Eybe, Hişşş!!!, Qusûrê nerêne û lêborîn xwestinên nebicî dibihîzin û bi her awayekê be kêm yan zor em ji merema wan fêm dikin. Di axavtin han de bi awayekî sewdayî oltîmatomek bi guhdêr tê dayîn ku nabe ev perde li ser wan axavtinên yan wateyên namo rake. Di axavtinên han de hêza sansorê axavtyar mecbûr dike ku ev xwe ji rastiyan biparêze û mebesta xwe bi qusûrî raberî guhdêr bike.

Hin kes jî ji xêncî sansorên naskirî û giştgîr xwe bi awayekî taybetî bêyî ku neçariyek li ser wan hebe, xwe sansor dikin. Ew bêyî ku pirsa xwe bînin ziman, rûçikekî şanoyî bi xwe digirin û xwe ji rastiyan dûr dixin. Reftara kesên han pêtir dişibe şanoyekê ku di vê şanoyê de sênarîst, ekter, derhêner û temaşevan her xwe bixwe bin.

Civakekî han ku sîstema vê perwerdeyî ramanên sansorîtî be, ev civak civakekî nexweş tê hejmartin û takên xwe ji her cure pêşkevtinekê parve dihêle. Di cîhana îro de sansor weke diyardeyekî paremayî tê darizandin. Îro ji bo ku takek bikaribe xwe binase, axavtarekî baş be, hebûn û xwezayê weke çawa ku hatî afirandin, bibîne û civaka xwe ji destê sansorê rizgar bike, gereke perde li ser hebûnê rake û rastiyên neguhur bibîne û wan hembêz bike heya ku bikaribe tevî cîhana nûjen hevsû bibe.

Werin ji bo cara yekem jî bê bersiva pirsa **"Gelo em çima xwe sansor dikin "** bi awayekî mentiqî û zelal bidin.




**Çeprast :**

1. Helbestvanekî navdar yê Fars – Alavekî muzîkê
2. Serbestî – Sûr e
3. Mandî –Keç
4. Bi Turkî gir – Tesfiye
5. Hejmarek e – Zordar
6. Bapîr – Notekî muzîkê
7. Neza ye – Her kesekê heye
8. Keriyê pêz bi Soranî – Bersiva pozetîv
9. Nerawestiyayî – Navekî keçan
10. Lêrewar – Teyreke ravker

**Serjêr:**

1. Nasiyonalîstê berçav teng – Cure gûzek e
2. Neteweyek e – Çem
3. Vexarinekî bi Alkol – Heyvanek e
4. Asayî – Dimlî
5. Darek e – Cilê hespan
6. Dayik bi Goranî – Heyvanek e
7. Pêlav – Kevir
8. Rêk û rast – Karûte
9. Keser – Xwarinek e
10. Zîwerekî bi qîmet – Bingehekî Wêjeyî







# Bo te dibêjim evîna min …

**Dara Natiq**

Sal û zeman bi ser me da diborîn, ez hertim bi hesreta te bûm. Demsal dihatin û diçûn, demsala payîzê jî hat lê …, quling, teyr û tîtal vedigeryane germiyanê, refên teyran li ber helesorka rojê dilivlivîn û li hinda welatê bav û kalên min da dikirn sîber, dengê wan bi ser jîngeh, deşt û newalan de belav dibûn û bêdengî dixendiqandin, tayê baranê û nerme bayê payîzê erd digirnijand, tîrojkên rojê bi hatina payîzê melûl dibûn, payîzê bi rengê xwe jîngeh xemilandibû, Pêşmergan hêdî hêdî xwe berhev dikirin û ber bi êvirgehên xwe ve dizivirîn.

Ezê bendewar û çavnihêr di nava refa azadîxwazên demokrat de, li elenda çiyayê Qendîlê bi hesreta dîtina te şev û roj diborandin, payîz jî çû, Pêşmerge hemû zivirîne êvirgehên xwe, lê mixabin … .

Evîna min çima ..., tu dizanî di xurbetistanê di nava şoreşvanên demokrat de, tu hemû gavan di hembêza min de semayê dikî, kenî û laqidiyên te her tim di xeyalên min de guhê bêdengiyê kir dikin, lê yarê te çima ez çavnihêrî hêlame..., ma qey te nezanibû li ber hêza evîna te felekê rê winda dikir û digot: Îro pêde ez ji bo dildaran heval im, Bilbilê bi bihîstina dengê te bi şevat û axîn ve digot: Li hemberî dengê te ez lal im, şewq û ronahiya te tarîkistan dişkand û sîtavkên bihêvîbûyî dişewiqandin, gul û beybûn û yasemînan li hember xemla te axîn û xwezî dikişandin û... .

Evîna min çima? Te çima ez evdal û bendewarê çolistanan kirim û... .

Ax, ax, ax .... bila bişevite mala felekê ku îro qederê em ji hev xistin.

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php**

**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
**E - Mail:**
**rojnama_agiri@yahoo.com**
**agiri2003@hotmail.com**

# Pirtûka "Kurte jîna siyasî ya rêberên PDK Îranê" derket

Bi hinceta 60'mîn salvegera avabûna PDK Îranê, Komîteya Birêveber ya rê û resma cejna 60 salî ya damezrandina PDK Îranê biryar girt ku kurte jîna siyasî ya rêberên vê partiyê biweşîne. Piştî 2 mehan, di van çend rojên borî de pirtûka **kurte Jîna siyasî ya rêberên PDK Îranê** bi zehmet û keda birêz Seyîd Reza Dirûdger berhev bû û hate çap û belavkirin.




Qewareya pirtûkê di rûpelên A4 û bi rengî hatiye amade kirin. Pirtûk ji 4 beşan pêk hatiye: 1. Destpêk, 2. Navê endamên rêberî yên PDK Îranê di heyamê 60 salên derbasbûyî de heya niha, 3. Balkişandinek bo ser Kongireyan û çawaniya diyarîkirina endamên rêberî yên PDK Îranê, 4. Kurte Jîna siyasî ya hevalên rêberiya PDK Îranê.

Bi giştî navê 181 kesan di pirtûkê de wekî rêberên PDK Îranê di navbera kongireya 1 heya 13'an de ketiye ber çavan.

Em bona vî karê hêja û bihagiran spas û pêzanînên xwe pêşkêşî kekê Seyîd Reza Dirûdger dikin.

# Di biryarekî dijî gelî da axavtina bi zimanê Kurdî li navendên leşkerî de jî hate qedexe kirin




Li gor nûçeyên ku gihîştine destê me di navenda fêrkirina leşkerî li bajarê Şîrazê de bi hev re peyivîn bi zimanê Kurdî ji bo serbazên Kurd hate qedexe kirin û ev biryare di hemû cihên vê navendê de birêve diçe.

Herwisan li gorî nûçeyan, ev biryare di hemû serbazxane yên Îranê de birêve diçe û her serbazeke Kurd jî vê biryarê bin pê bike, ji aliyê hêzên şovenîst û dijî gelî yên rêjîmê bi tundî tê ceza dan.

Hêjayê gotinê ye ku heyamekê berî niha îdara perwerde û fêrkirinê ya parêzgeha Kurdistanê (Sine) jî biryarekî wisan ji bo xwendekarên di navendên perwerde û hînkirinê de dabû.

## Radyo Dengê Kurdistana Îranê li ser Înternetê




Li ser înternetê guhdariya Radyo Dengê Kurdistana Îranê bikin:
http://www.rdki.com
RDK Îranê bi du zimanên Kurdî û Farsî bernamên xwe belav dike.

E Mail:
info@rdki.com
rdk_iran@yahoo.com

Faks:
**0012706824654**

# Du berhemên hunermend Luqman Ehmed ji Kurdistana Sûriyê



